

# BUROYA KURDÎ
# *ya Pêwendî û Agahdariyê*

**Bultena agahdariyê N° 66 - Çirî 2010**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tél. 02 219 80 60 www.kurdishbureau.be
kurdishbureau@scarlet.be

## XEBATA BUROYA KURDÎ

### *ÎLON 2010*

**KONFÊRANS**
***19.09.2010 : Mîr û Balêrîna Kurd, Leyla Bedir Xan (1908 – 1986)***



Rênas Newrozî, nivîskar û rojnamevan, bi alîkariya gelek fotoyên arşîvan, li ser balêrîna kurd, Leyla Bedir Xan, peyivî.

Leyla Bedir Xan yekemîn jin, ji Kurdistan û Rojhilata Navîn, bû ku di warê balê (ballet, sema) di salên 1930-1960 navdar bû. Ew ji malbata mîrî ya navdar a Bedir Xan û keça Abdulrezzaq bû û di 1908 de li Istanbulê çêbû. Dema ku di 1913 de, Imperatoriya Osmanî biryar da ku endamên malbata wê biperçiqîne, ew piçûk bû û neçar (mecbûr) bû ku tevî diya xwe ya polonî, Henriette, biçe Misrê. Piştî şerrê cihanê yê yekemîn, ew çû Ewropa. Wê li Swîsra xwend, piştre dibistana balê (ballet) li Almanya kutah kir (qedand) û li dawiyê li Fransa jiya. Wê li ser dikkên (sahne, scènes) ewropî, li Otrîş (Nêmsa, Avusturya), Almanya, Swîsra, Fransa, Beljîka, Ispanya, Hollanda û Îtalya lîzt. Û Wê gelek caran li Amerîka û Kanada jî lîzt. Her hergav bi serbilindî xwe weka balêrîneke (semaker) kurd dida nasîn.



Ji piçûkayiya xwe de, Leyla gelek di bin kartêkirina (te'sîr) bavê xwe, ku Kurdê tenê ku li mala wî piano hebû, de ma. Û ew ronakbîreke mezzin jî bû. Wê lêgerîn li ser merasîmên ola zerdeştî – ola kevnar a Kurdan – û yên olên din ên kevn ên îranî, misrî û hindî kirin. Û wê lêgerîn li ser dîlanên Rojhilata Navîn jî kirin. Wê li Parîsê di 1986 de wefat kir. Navê wê di dîroka Kurdistanê û arşîvên cihanê de hatiye nivîsîn.

**HEVKARÎ BI RÊXISTINÊN DIN RE**

***Hevpeyvîn***

***10.09.2010*** : Rebecca Thys, xwendekareke doktora li beşa civakzaniyê (sociologie) li zanîngeha U.L.B. (Université Libre de Bruxelles), hevpeyvînsek bi Pervîn Cemîl, seroka Buroya Kurdî, re di çarçeva lêgerîna xwe li ser rêxistinên “volontaires : ên ku bê amanceke maddî kar dikin) li Bruksêlê, kir.

***11.09.2010*** : Rojnama tirkî Taraf bi Pervîn Cemîl re hevpeyvînsek li ser rêfêranduma li ser destûra nuh li Tirkiyê, ku roja din bû, kir.

***Seredana birehber a Parlementa Bruksêlê***

***27.09.2010*** : Koordinasyona Minderhedenforum (Foruma Hindikayiyan) seredaneke birehber a Parlementa Bruksêlê pêk anî. Kurd jî beşdar bûn vê seredana gelek balkêş. Rehbereke jin komplêksbûna sazendeyan, li Beljîka û Bruksêlê, ravekir û piştre mêvan li eywanên cihê yên bedew gerrandin.



**BEŞDARBÛNA XEBATÊN RÊXISTINÊN DIN**

***Semînerek li Parlementa Ewropî***

***15.09.2010*** : Koma Keskan/ ALE (Hevalbendiya Azad a Ewropî) û rêxistina « Kurdish Human Rights Project », ku li Ingilterê ye, li Parlementa Ewropî semînerek bi navê « Situation for Displaced Persons in the Kurdish Regions » (Rewşa Kesên Cîhil « koçber » li Navçeyên Kurdî) kir.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## *ÎLON 2010*

## KURDISTANA TIRKIYÊ

**RAPPORA « UN »Ê LI SER TIRKIYÊ**
***Di 13 Tebax 2010 de***, pispora amerîkî ya Rojhilata Navîn, Carol Migdalovitz, rapporek li ser Tirkiyê, bi navê « Tirkiye : Siyaseta Nasname û Desthilatê », ji bo servîsa lêgerînê ya UNê (Rêxistina Neteweyên Yekbûyî), nivîsî. Ew tê de dibêje ku partiya desthilatdar, AKP, di bicîanîna rêformên sozdayî yên li ser bêtir maf ji hindikayiyan re û « vebûna kurdî » de bi ser ne ket. Ev rappor çend hefte berê rêfêranduma li ser destûra nuh a tirkî, ya 12 Îlon 2010, hat nivîsîn.
*(rudaw.net, 07.09.2010)*

**BOYKOTKIRINA RÊFÊRANDUMA LI SER DESTÛRA NUH**
***Di 12 Îlon 2010 de***, 30 sal piştî darba leşkerî ya 12 Îlon 1980, rêfêrandumek li ser destûreke nuh a tirkî hat kirin. Wê 58% belê û 42% na stendin. Li tevayiya Tirkiyê, rêjeya (nisbet) beşdarbûnê gihajt 77%. Lê, li Kurdistanê ew 58% bû û ji vê rêjeyê 42% got na. Partiya ku bi awakî ne fermî kurdî ye û ku nêzîkî PKKê ye, BDPê, kampanyake xurt ji bo boykotkirinê ajot, ji bo ku di pêşniyara vê destûrê de mafên Kurdan ne hati bûn nivîsîn, li gel guherandinên girîng di warê dêmokrasiyê li Tirkiyê de.
*(çapemeniya tirkî û kurdî, 12.09.2010)*

**SEREDANA “ENCUMENA PÎRAN” YA EWROPÎ**
***Di 15 Îlon 2010 de***, ji bo dîtina çareyeke aşîtiyane ji pirsa kurdî re, “Encumena Pîran” a ewropî çû seredana Tirkiyê. Serokatiya wê Martti Ahtissari, serokê berê yê Finlanda (ji 1994 heta 2000) û Xelata Nobelê ya Aşîtiyê di 2008 de, kir. Pê re wezîrê berê yê ispanî yê karên derve, Mercelino Oreja Aquirre; wezîrê berê yê hollandî yê karên derve, Hans Van Den Broek, û rappornivîsê encumena Tirkiyê, Albert Rohan, pê re bûn.
Şande çû seredana serok Abdullah Gül, serokwezîr Recep Tayyıp Erdoğan û berpirsiyarên partiya kurdî BDPê û yên civaka sîvîl.
*(netkurd.com, 16.09.2010; aknews.com, 18.09.2010; rizgari.org, 20.09.2010)*

**CARDIN PÊTROL LI KURDISTANÊ**
Li gora şirketa pêtrolê ya tirkî, TPAO, pêtroleke baş di bîreke ku kûrayiya wê 700 m. ye, li Ergenî, nêzîkî Diyarbekirê, hat dîtin.
*(avestakurd.net, 23.09.2010)*

**NAVÊN KURDÎ LI 91 GUNDAN Û LI SERVÎSÊN DIYARBEKIRÊ**
Encumena şaredariyî (meclisa belediyê) ya bajarê Diyarbekirê navên kurdî yên eslî yên 91 gundên wî li ser navên tirkî ku li ser tabloyan hatine nivîsîn zêde kirin. Ev navên kurdî berê 70 salan hati bûn tirk kirin. Biryara li ser vê guherandinê ji aliyê encumenê di Çirî 2009 de hati bû stendin.
*(avestakurd.net, 23.09.2010)*

Bi ser de jî, şaredariya Surê, yek ji şaredariyên Diyarbekirê, li ber hemî servîsên xwe tabloyên bi sê zimanan, tirkî, kurdî û ingilîzî, bi dar ve kirin (daleqandin).
*(netkurd.com, rizgari.org, 28.09.2010)*

**BOMBEKIRINA KURDISTANA IRAQÊ**
***Di 26 Îlon 2010 de***, firokeyên tirkî navçeyên sînorî yên Kurdistana Iraqê bombe kirin. Rûniştevanekî fille yê gundê Başê, qezayê Dêrelûkê, birîndar bû.
*(peyamnercom, 27.09.2010)*

**WEZÎRÊ TIRK Ê HUNDIR LI KURDISTANA IRAQÊ**
***Di Îlon 2010 de***, wezîrê tirk ê hundir, Beşir Atalay, çû Kurdistana Iraqê û tê de rastî serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, û berpirsiyarên ramyariyî (siyasî) yên din hat. Amanca seredana wî ew bû ku tecrube bike ku çareyekê ji şerrê PKKê û pirsa kurdî li Tirkiyê re bibîne. Ev rasthatin beşek ji rasthatinên ku Tirkiye bi berpiriyarên amerîkî û iraqî re dewam dike ne.
*(azady.nl, anf, Ekurd, 28.09.2010)*

**10 SAL ZÎNDAN JI SEROKÊ "BDP"ê RE**
***Di 28 Îlon 2010 de***, dadgeheke tirkî hevserokê partiya ku bi awakî ne fermî kurdî ye, BDPê, Selahettin Demirtaş, bi 10 sal zîndan tawanbar (mehkûm) kir, ji bo ku wî di 2007 de li têlêvîzyona kurdî "Roj TV" peyivî bû û tê de *"propaganda rêxistinekê"* kiri bû.
*(avestakurd.net, peyamner.com, 28.09.2010 ; Hürriyet, Milliyet, 29.09.2010)*

**ZIMANÊ EREBÎ DI PERWERDÊ DE**
Wezareta tirkî ya pererdê biryar stend ku zimanê erebî deyne ser zimanên ne tirkî ku meriv dikare di bernameyên perwerdê de bibijêre. Zimanên din ên biyanî ev in : Çînî, almanî, fransî, ingilîzî, ispanî, îtalî, japonî û rûsî. Lê eger em werin kurdî, ew ji nêzîkî 20 milyon Kurdên ku li Tirkiyê dijîn re qedexe ye !
*(avestakurd.net, 30.09.2010)*

**32 BERPIRSIYARÊN KURD TÊN RAGIRTIN**
***Di 30 Îlon 2010 de***, polîsê tirkî li Riha (Urfa) 32 endamên partiya kurdî « BDP »ê, ku ji wan hevserokên şaxa Riha ya vê partiyê, Adil Fidan û Ibrahim Ayhan, ragirtin. Bi ser de jî, ew ket mala şaredarê vî bajarî, Ethem Şahin, û ew bir. Û ew ket buroyên rojnama kurdî Azadiya Welat a Yekîtiya Xwendekarên Dêmokrat, ya zanîngeha Riha, jî. Ew hemî bi propaganda PKKê hatine tawanbar kirin. PKKê biryara dirêjkirina agirbirrînê meheke din stend.
*(rudaw.net, anf, 01.10.2010)*

## KURDISTANA IRAQÊ

**WEZÎRÊ URDUNÎ YÊ PÎŞESAZIYÊ LI KURDISTANÊ**
***Di 31 Tebax 2010 de***, wezîrê urdunî yê pîşesaziyê (sina'et), Amer El-Hedîdî, çû Kurdistana Iraqê û tê de di zimanên cihê de rastî serok Mesûd Berzanî û serokwezîr Behrem Salih hat, ji bo ku li ser pêşdebirina pêwendiyên bazarganiyî û aborî di navbera her du aliyan de giftûbêj (munaqeşe) bike.
*(peyamner.com, krg.org, 02.09.2010)*

**CÎGIRÊ SEROKÊ AMERÎKA LI KURDISTANÊ**
***Di 01 Îlon 2010 de***, serok Berzanî pêşwaziya cîgirê serokê amerîkî, Josef Biden, kir. Şandeke kurdî û yeke amerîkî beşdar bûn vê rasthatina ku tê de li ser rewşa ramyariyî (siyasî) li Iraqê hat giftûbêj kirin (ji hilbijartinên parlementerî yên Adar 2010 de hukûmeteke iraqî nîn e !). Mîrza Biden ji Mîrza Berzanî re dilniya (te'kîd) kir ku serokê amerîkî Barak Obama gelek girîngî dide rola wî li Iraqê.




*(krg.org, peyamner.com, pukmedia.com, aknews.com, rudaw.net, nefel.com, kurdistan-news.net, 02.09.2010)*

**ÊRÎŞ LI NAVÇEYÊN EREBKIRÎ YÊN KURDISTANÊ**

***Di 01 Îlon 2010 de***, bombeyek li Qiziltepê, qezayekî Xaneqînê, teqiya. Du berpirsiyarên Yekîtî Niştimanî Kurdistan (YNK) birîndar bûn.
*(pukmedia.com, 01.09.2010)*

***Di 16 Îlon de***, du bombe li ser pageriyeke (dewriye) polîs li Kerkûkê teqiya. 3 polîs birîndar bûn.
*(peyamnercom, 16.09.2010)*

***Di 24 Îlon de***, bombeyek li qezayê Hewîca teqiya. 5 kes birîndar bûn.
*(peyamner.com, 25.09.2010)*

**CIVÎN BI KONSULÊN WELATÊN BIYANÎ RE**

***Di 16 Îlon 2010 de***, hukûmeta Kurdistana Iraqê civîneke fireh bi hemî konsul û nimînendeyên welatên biyanî, ku li Kurdistanê hatine nas kirin, kir. Piştî giftûbêjkirina rewşa aborî û ewlehiyî (emnî) li navçê, her nimînendeyek li ser xebata xwe peyivî.
*(peyamner.com, 16.09.2010)*

**KURD JI HOLLANDA VEDIGERIN KURDISTANÊ**

Di rasthatineke bi berpirsiyarê pêwendiyên derve yê hukûmeta Herêma Kurdistana Iraqê, Fellah Mustafa, re, balyozê (sefîr) Hollanda li Iraqê, Peter van Leon, dilxweşiya xwe ji istikrara vê navçê daxuyand û got ku jimareke mezzin ji Kurdên Hollanda vegeriyaye Kurdistanê. Her du alî girîngiya xurtkirina pêwendiyên xwe yên aborî û bazarganiyî û pêwendiyên di navbera zanîngehên xwe de dest nîşan da.
*(azady.nl, aknews.com, 17.09.2010)*

**HEFTEYA ÇANDÎ YA SURYANÎ**

***Di 17 Îlon 2010 de***, birêvebirê qezayê fille ya Eyn Kawa, Fehmî Metê Solaqa, pêşangeheke hunera teşkîlî “expressionniste”, karîkatûr, destnivîsa (calligraphie) suryanî û fotoyan, li eywana kluba cuhanên Eyn Kawa, vekir. Ev yek bi hinceta hefteya 3mîn a çandî ya suryanî, ku ji aliyê birêvebiriya giştî ya çand û hunerên suryanî hat pêk anîn. Jimareke girîng ji berpirsiyarên fermî (resmî) û hukûmî beşdarî wê bûn.
*(peyamner.com, 18.09.2010)*

**HÎNKIRINA ZIMANÊ ALMANÎ**

***Di 26 Îlon 2010 de***, protokolek li ser projeya hînkirina zimanê almanî li Kurdistana Iraqê ji aliyê wezîrê çandê yê Kurdistanê, Sefîn Dizeyî, û konsulê alman li Hewlêrê, Steven Pantel, hat wajo (imza) kirin. 3.700 xwendekar xwest ku bên qeyd kirin. Di 2010 de, dibistana pêşîn a almanî li Kurdistanê hat vekirin.
*(krg.org, netkurd.com, 25.09.2010)*

**ÊRÎŞEKE XWEKUJ LI SULEYMANIYÊ**

***Di 29 Îlon 2010 de***, êrîşeke xwekuj du karbidestên hêzên ewlehiyê li Suleymaniyê birîndar kirin. Berê ku têrrorîst xwe biteqîne, polîs tecrube kir ku pê bigire, lê wî agir berda, du polîs birîndar kirin û piştre xwe teqand.
*(pukmedia.com, peyamner.com, avestakurd.net, 29.09.2010)*

**KONSULÊ ALMAN LI HALABCA**

***Di 29 Îlon 2010 de***, konsulê alman li Kurdistanê, Steven Pantel, çû seredana bajarê piçûk ê Halabca, ku di 1988 de bi çekên şîmîk hati bû êrîş kirin û tê de 5.000 kes bi fetisandinê miri bûn. Wî seredana peykerê (monument) şehîdan kir û îtîraf kir ku hin şirketên almanî çekên şîmîk ji Saddam Huseyn re firoti bûn.
*(pukmedia.com, rudaw.net, 29.09.2010)*

## KURDISTANA ÎRANÊ

**NIVÎSKAREK TÊ RAGIRTIN**

***Di 07 Îlon 2010 de***, li gora malpera « renesansnews », hêzên ewlehiyê yên îranî helbestvan û nivîskarê kurd ê navdar, Azîz Nasirî, ji bajarê Merîwanê, bin çav kir û bir ciyekî nenas. Sedemên ragirtina wî ne naskirî ne.
*(avestakurd.net, 08.09.2010)*

**5 RAMYAR (SIYASÎ) TÊN RAGIRTIN**

***Di 13 Îlon 2010 de***, li gora malpera « hrana », hêzên ewlehiyê 5 çalakvanên kurd, Ayet û Salih Kerîmî, Ekber Xulamî, Sabir Muhammed û Wehîd Rahmanî, li gundê Binçlê, ku girêdayî bajarê Rewanserê, li Kurdistana Îranê, ragirtin û ew birin ciyekî nenas. Li gora vê malperê, ew bi alîkariya partiyeke kurdî hatine tawanbar (ittiham) kirin.
*(avestakurd.net, 15.09.2010)*

**CUHANEK LI BIN ÊŞKENCÊ DIMIRE**

***Di Îlon 2010 de***, kurdekî cuhan, Nasir Îsazade, ku tevî du keçan  ji aliyê hêzên ewlehiyê hati bû bin çav kirin, li bin êşkencê mir.

Li gora malpera « renesans.info », Îsazade ji gundê Kozereşê, ku girêdayî bajarê Selamsê, li Kurdistana Îranê, bû, lê ku ji bo demekê çû bû Tehranê. Haya tukesî ji her du keçan nîn e.

Li gora rêxistinên mafên mirov, di demên dawîn de, kuştinên cuhanên kurd ji sedemên nenas zêde bûne. Ev yek ji tirsa serhildaneke kurdî.
(avestakurd.net, 20.09.2010)

**ÊRÎŞEK LI MAHABADÊ : 11 MIRÎ Û 58 BIRÎNDAR**

***Di 22 Îlon 2010 de***, li Mahabdê teqinêneke mezzin li dijî hêzên ewlehiyê yên îranî bû. 11 kes mirin û 58 jî birîndar bûn.

Parêzgarê (walî) vî bajarî, Wahîd Celalzade, ji malpera fermî ya îranî « irna » re daxuyand ku ev teqîn di dema merasîma bîranîna şerrê iraqî-îranî de bû. Û wî got jî ku piraniya qurbanan jin û zarok bûn.
Partiya kurdî ku şerrê çekdarî dike û ku nêzîkî PKKê ye, PJAK, ev êrîş riswa (protêso) kir û got ku wê ew ne kiriye. PJAK êrîşeke din jî, ku berê rojekê li Saqizê bû û ku tê de du kes mirin, riswa kir.
(peyamner.com, avestakurd.net, azady.nl, 22.09.2010)

**HUNDERMENDEK TÊ TAWANBAR KIRIN**

***Di 22 Îlon 2010 de***, li gora malpera „hrana“, dadgeha Merîwanê hundermendê kurd, Muxtar Hûşmend, bi 16 sal zîndan tawanbar kir. Ew di Sibat 2010 de ji aliyê hêzên ewlehiyê yên vî bajarî hati bû ragirtin.
Huşmend wênekêş (ressam), çalakvanekî (xebatkar) çandî, berpirsiyarê hunermendên Merîwanê û berpirsiyarê fêstivala hunerî ya salane ye.
(avestakurd.net, 23.09.2010)

**BOMBEKIRINA KURDISTANA IRAQÊ**

***Di 24 Îlon 2010 de***, topxaneya îranî navçeyên sînorî yên Kurdistana Iraqê, Kîleşîn, Kegewzîn, Şmêrg, Mêrgemîr, Quncir, Bêrkme, Xnêre, Rusor, Serê Avê, Çiyayê Dêmê, Serî Kanî Dilk, Mêrge Hewş û Lolanê, li nêzîkî bajarokê Sîdekanê, bombe kirin. Tukes ne mir.
(avestakurd.net, 25.09.2010; peyamnercom, 26.09.2010)

**DU KURD TÊN TAWANBAR KIRIN**

Ajansa îranî ya mafên mirov, HRANA, daxuyand ku du Kurd, Cemal Emînî û Muhammed Munîrî, bi du sal zîndan hatin tawanbar kirin. Parêzerê (avukat) wan, Seyid Wefa Huseynî, got ku ê pêşîn bi propaganda li dijî rejîma islamî ya Îranê, û yê duyemîn bi alîkariya partiyên ramyariyî (siyasî) ku li dijî Komara Islamî ne, hatiye tawanbar kirin. Her du girtî berê du salan hati bûn zîndan kirin û piştre, bi dayîna pere, hati bûn azad kirin.
(peyamnercom, 28.09.2010)

**ÇALAKVANEK TÊ TAWANBAR KIRIN**

Li gora malpera “kurdperspektiv”, Kurdekî 34 salî, Xerîb Fatimî, ji bajarê Merîwanê, bi 10 sal zîndan hat tawanbar kirin. Ew berê 9 mehan hati bû ragirtin û bin çav kirin. Ew bi alîkariya partiyeke ramyariyî ya kurdî hatiye tawanbar kirin û parêzerê wî nîn e.
(avestakurd.net, 30.09.2010)

## KURDISTANA SÛRIYÊ

**KURDEK TÊ RAGIRTIN**

***Di 27 Tebax 2010 de***, servîsên ewlehiyê yên sûrî Imad Iskan Ahmed, zewicî û bavê 6 zarokan, li Qamişlî ragirt. Sedemên ragirtina wî nenas in.
(kurdwatch.org, 01.09.2010)

**MIRIYEK LI ZÎNDANÊ**

***Di 28 Tebax 2010 de***, Riyad Ahmed Xelîl di dema binçavkirinê de, li birêvebiriya ewlehiya ramyariyî (emnê siyasî) ya Helebê, mir. Ne xuya ye ku mirina wî xwezayî (tabîî) yan ji sedema êşkencê ye. Xelîl û kurrê wî Damhat bi hev re di 4 Tîrmeh 2010 de hati bûn ragirtin. Ev yek ji sedema kurrekî din, Ehmed Xelîl, şervanekî kevn ê PKKê. Evê dawîn di dema vegera xwe Sûriyê bi dilxwazî xwe radestî (teslîmî) desthilatên sûrî kiri bû. Ji wê gavê de ew li zîndanê ye, lê birayê wî Damhat piştî mirina bavê xwe hat berdan.
(kurdwatch.org, 18.09.2010 ; avestakurd.net, 22.09.2010)

**4 KURD TÊN RAGIRTIN**

***Di 15 Tebax 2010 de***, servîsên ewlehiyê yên dewletê yên Qamişlî 4 Kurd, Dr. Luqman Ibrahîm Huseyn, Sa’d Ferhan El-Hesen, Abdulxefûr Huseyn Huseyn û Salah Seîd Şêxmûs, ragirtin. Ev yek ji bo ku ew xulekek (deqqe) bêdeng, ji bo riswakirina (protêsto) Biryarnama N° 49 li ser mafên Kurdan, rawestiya bûn.

Ev çalakiya xuleka bêdengiyê di 10 Îlon de li Amudê, ji aliyê Encumena Ramariyî ya Kurdî li Sûriyê hati bû dest pê kirin.
(kurdwatch.org, 21.09.2010)

**DU KURD TÊN RAGIRTIN**

***Di 21 Îlon 2010 de***, li gora rêxistinên mafên mirov, du Kurdên Qamişlî, Cemal Ibrahîm Mencê û Mesûd Başûk, hatin ragirtin. Ê yekemîn ji berê jî çend caran, ji sedema riswakirina biryarname N° 49, hati bû ragirtin. Ê duyemîn li Almanya dimîne û ji bo seredanê hati bû.
(avestakurd.net, 24.09.2010)

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ

**PÊŞANGEHEK LI WANÊ**

***Di 01 Îlon 2010 de***, bi hinceta Roja Navneteweyî ya Aşîtiyê, wênekêşê (ressam) kurd, Hasan Bağdaş, pêşangehek li Saraya Çandê, li Wanê, li Kurdistana Tirkiyê, vekir. Ev yek bi amadebûna şaredarê Wanê, Bekir Kaya ; serokê Odeya Pîşesazî (sina'et) û Bazarganiyê ya Wanê (VASTO), Zahir Kandaşoğlu ; şaredara Bostancı, Nezahat Ergüneş, û endamên encumenên şaredariyî û hezkirên hunerê.

Hunermend Hasan Bağdaş ji 1973 de li Ostralya dijî. Heta nuha wî 32 pêşangehan li Ostralya û 26 li Çîn, Berlîn, Hamburg, Bruksêl, London, Kayserî (Tirkiye), Diyarbekir, Ankara, Riha (Urfa), Istanbul û Konya (Tirkiye) vekirine.
*(aknews.com, 01.09.2010)*

**GOLA WANÊ JI 400.000 SALAN E**

Mamosteyê zanîngeha Bonê û koordînatorê projeya « Sondage » ya gola Wanê (Kurdistana Tirkiyê), Dr. Thomas Litt, dawuyand ku ev gol ji 400.000 salan heye.

Projeya « Paleo-Van » ku di 2004 de li gola Wanê dest pê kiri bû û ku piştgiriya wê « Bernama Navneteweyî ya Sondajên Zanyariyî » (International Program of Scientific Sondages) kiri bû kutah (xelas) bû. Kar li ciyên cihê yên golê ji aliyê 35 zanayên navçeyî û navneteweyî hatin kirin. Piştre, wan civînek li zanîngeha Yüzüncü Yıl, li Wanê, kir. Prof. Litt tê de got ku gola Wanê ciyekî wê ya taybetî li cihanê heye û ku ew piştî volkanekê li çiyayê Nemrûdê derket. Û wî got jî ku encamên ku yane (équipe) di dirêjayiya 5 salan de civandin ewê di laboratwaran de bên tehlîl kirin, piştre ewê ji ramana tevane (opinion publique) re bên daxuyandin (îlan kirin).
*(nefel.com, 02.09.2010)*

**DÎLANÊN KURDÎ LI FINLANDA**

***Di 02 Îlon 2010 de***, li gora malpera « kurdistankurd », rêxistina pirçandî ya navçeya Olenda, li Finlanda, civînek li bajarê Mari Hamen, bi amadebûna seroka Finlanda, pêk anî. Jin û zilamên kurd tê de sê dîlanên kurdî pêşkêş kirin. Serok û zilamê wê jî bi wan re ketin dîlanê. Kanala têlêvîzyona TV 24 ew bi awakî fireh weşand.

Divê ku bê zanîn ku Finlanda welatekî fêdêral e û ku gelek Kurd, ji 4 perçên Kurdistanê, nemaze ji Kurdistana Îranê, li parêzgeha (wilayet) Olana dijîn.
*(aknews.com, 04.09.2010)*

**YANEYEKE KURDÎ YA FUTBOLÊ LI IRAQÊ YEKEMÎN E**



***Di 04 Îlon 2010 de***, lîga iraqî ya futbolê maçek li stadiuma Bexdadê pêk anî. Yaneya (équipe) bajarê Duhokê, li Kurdistana Iraqê, bi 1-0 bi ser ket. Lîzvan Xalid Muşîr kûpa vê lîgê stend.
*(aknews.com, avestakurd.net, 05.09.2010)*

**5 ALPÎNÎST LI ÇIYAYÊ AGIRÎ**



5 alpînîstên (çiyahilkêş) Fêdêrasyona Alpînîstên Kurdistanê (Iraq), ku ji wan 3 zilam û 2 jin, hilkişiyan Çiyayê Agirî, li Kurdistana Tirkiyê, ku bilidbûna wî 5.865 m. ye, û li serê wî ala kurdî çikand. Ev kom di 18.05.2010 de çû bû Kurdistana Tirkiyê û di 10.08.2010 de vegeriya bû Hewlêrê.

Ev fêdêrasyon ji 2005 de heye û 150 endamên wê, ku ji wan 30 jin, hene. Heta nuha, ew hilkişiyane çiyayên cihê, li perçeyên cihê yên Kurdistanê.
*(nefel.com, 05.09.2010)*

**HELBESTA KURDÎ TÊ WERGERANDIN EREBÎ**
Navenda Neteweyî ya Wergerandinê li Qahirê, li Misrê, berhevokeke helbestavanê navdar, Şêrko Bêkes, ji Kurdistana Iraqê, weşand. Mezintirîn beşa vê wergerandinê ji aliyê Kurdekî, Azad Berzencî, hat kirin.
*(aknews.com, pukmedia.com, 07.09.2010)*

**XELATEK JI FÎLMEKE KURDÎ RE LI NEW YORKÊ**
***Di 13 Îlon 2010 de***, fîlma belgeyî ya fîlmçêkerê kurd, Bülent Gündüz, ku jiyana dengbêjê navdar Evdalê Zeynikê dibêje, Xelata Juriyê li Fêstivala Navneteweyî ya Fîlma Serbixwe ya New Yorkê "New York International Independent Film" stend.
*(avestakurd.net, 14.09.2010)*

**FÎLMEKE KURDÎ LI SWÎSTA Û KANADA**
***Di Îlon 2010 de***, fîlma « Mandû » (Westiyayî), ya fîlmçêkerê kurd ê Îranê, Ibrahîm Seîdî, du caran li Fêstivala Navneteweyî ya Fîlmê ya Torono, li Kanada, hat nîşan dan. Fîlm koçberiya kurdî dibêje û 90 xulek (deqqe) dajo (dewam dike).

Cara pêşîn, ew di 09 Îlon de, bi taybetî ji bo rojnamevan û nûçegihanan (reporters) li eywana Citybankê hat nîşan dan. Cara duyemîn, ew ji bo xelk bi giştî, li eywana "AMC 5" hat nîşan dan. Berê jî ew li Swîsra, roja pêşîn a Fêstivala Navneteweyî ya Fîlmê ya Locarno, ku ji 4 heta 14 Îlon ajot, hat nîşan dan.
*(aknews.com, 17.09.2010)*

**JAPONIYEK LÊGERÎN LI SER KURDAN DIKE**
Saichi Takahachi, 28 salî, xwendekarekî japonî li zanîngeha Hosei, li Tokyo, ye. Ji bo amadekirina doktora xwe di civakzaniyê (sociologie) de, wî seredana Navenda Ewropî ya Lêgerînên Kurdî li Berlînê kir, ji bo ku tê de têza xwe li ser Kurdên Almanya bike. Ew dibêje ku li Japon pirtûkên li ser Kurdan hene, lê ku lêger û rojnamevanên japonî bitenê piştî şerrê Iraqê di 2003 de bala xwe da Kurdan.

Seroka vê navenda kurdî li Berlînê, Eva Savelsberg, got ku komeke lêgerên japonî seredana vê navendê kiriye û ku tê de pirtûkên bi japonî hene.

Nêzîkî milyonek Kurd li Almanya û 200 li Japon dijîn.
*(rudaw.net, 19.09.2010)*

**BÎRANÎNA FÎLOZOFEKÎ KURD LI BEXDADÊ**
***Di 20 Îlon 2010 de***, Kurdish Publishing House (Mala Weşana Kurdî) li Bexdadê merasîmeke bîranîna fîlozof û nivîskarê kurd ê navdar, Mesûd Muhammed, pêk anî.

Birêvebira pêwendiyên derve ya vê navendê, Faiza Reşîd, daxuyand ku Mesûd Muhammed yek ji mezintirîn fîlozofên Iraqê bû û ku pirtûkên wî li pirtûkxaneyên iraqî û kurdî hene. Muhammed di 1919 de li Koyê, li Başûrê Hewlêrê, bû bû. Wî huqûq li zanîngeha Bexdadê xwend, piştre, di 1960 de, dest bi nivîsîna di rojnameyên vî bajarî de kir. Di 2001 de wefat kir. Ji berhemên wî, Zimanê Kurdî, Mirov û Hawîrdora wî, Gazinên Jiyanê, Perestroika Gorbatchov, Rexneyek, Dîtinek li ser Şirovekirina (tefsîr) Mirovî ya Dîrokê.
*(aknews.com, 21.09.2010)*

**KONFÊRANSA JINÊN KURD LI KURDISTANA IRAQÊ**
***Di 18 û 19 Îlon 2010 de***, li Duhokê, li Kurdistana Iraqê, konfêranseke jinên kurd ku ji çar perçên Kurdistanê, ji Ewropa û Amerîka hati bûn bû. Ji wan, Leyla Zana, parlementera berê li Tirkiyê û Xelata Zakharov ya Parlementa Ewropî; Nermîn Osman, wezîra hawîrdorê ya hukûmeta Kurdistana Iraqê; Kajal Rahmanî, ji zanîngeha Harvardê, li Amerîka.

Du rojan jin li ser pirsên jinan û Kurdan bi giştî giftûbêj kir. Wan got ku ji bo alîkariya aşîtiyeke hergavî (daimî) li Kurdistanê ji destê wan çi bê ewê bikin.
*(rudaw.net, 21.09.2010)*

**5 PARLEMENTERÊN KURD LI SWÊDÊ**




Li hilbijartinên parlementerî li Swêdê, di Îlon 2010 de, 5 Kurd, ku ji wan 3 jin, ji her çar perçeyên Kurdistanê, hatin hilbijartin :

- Partiya sosyal-dêmokrat : 2 jin, Roza Güçlü Hedin (Kurdistana Tirkiyê) û Şadiye Haydarî (Kurdistana Îranê).
- Partiya Keskan : Cebbar Emîn (Kurdistana Iraqê).
- Partiya Gel : Ismaîl Kamil (Kurdistana Sûriyê)
- Partiya Çep : jinek, Emîne Kakabaweh (Kurdistana Îranê)

Hukûmeta Kurdistana Iraqê ji wan re peyamên (mesaj) pîroziyê şandin.
*(çapemeniya kurdî, 23.09.2010)*

**KURDEK EREBEYEKE KU BI AVÊ DIÇE ÇÊKIR**

Berê deh salan, Mustafa Karasüngür, Kurdekî Tirkiyê, erebeyeke ku bi saya avê dixebite çêkiri bû. Wî li ser wê „H20“ nivîsî. Du dêpoyên wê hene, yek a gazê « LPG » û yek a avê. Ew wê bi avê 40% dajo. Karasüngür, 45 salî, ji 30 salan de bi êlêktronîkê xerîk (mijûl) e.

*(avestakurd.net, 26.09.2010)*

**450 ROJNAME Û KOVAR LI KURDISTANA IRAQÊ**

***Di 25 Îlon 2010 de***, birêvebirê sendîka rojnamevanên Kurdistana Iraqê, Yûsif Qesab, daxuyand ku nêzîkî 450 rojname û kovar li Kurdistanê tê weşandin. Û wî got jî ku hin ji wan ên partiyên ramyariyî ne û hin jî serbixwe ne.

*(avestakurd.net, 26.09.2010)*

**GOLIKÊ ZÊRÎN JI FÎLMÇÊKEREKE KURD RE LI HOLLANDA**

***Di 27 Îlon 2010 de***, rêjîssora kurd, Berî Şalmaşî, û hev-rêjîssora hollandî, Sanne Vogel, Xelata Golikê Zêrîn « Gouden Kalf) li Fêstivala Hollandî ya Fîlmê, ji bo fîlma xwe « Mama », stend. Ewê xelat ji wan re di 01 Çirî de, di Galaya Fîlma Hollandî de, li şanoya « Stadschouwburg »ê, li Utrechtê, bê dayîn.

*(rudaw.net, azady.nl, 28.09.2010)*

**GOLA NEMRÛDÊ JI NAV 25 CIYÊN TÛRÎSTÎK ÊN EWROPÎ**

Yekîtiya Ewropî gola ku li kratêra çiyayê Nemrûdê, li Kurdistana Tirkiyê, ye xist nav 25 ciyên tûrîstîk ên ewropî. Ev kratêr ê mezzintirîn li Ewropa û 2mîn li cihanê ye. Tûrîst dikarin tê de avjeniyê bikin û di hewzên piçûk ên nêzîkî golê de bi ava têrmîk xwe bişon.

*(rizgari.org, 29.09.2010)*

**ŞANDEYA GOOGLE Û YOUTUBE LI KURDISTANA IRAQÊ**

***Di 27 Îlon 2010 de***, akadêmiya têknolojiya enformatîkê ya hukûmeta Kurdistana Iraqê pêşwaziya şandeke Google û Youtubê kir.

Amanca seredanê xurtkirina bikaranîna entêrnêtê li Kurdistanê ye. Ev akadêmî di 2007 ava bû bû.

*(netkurd.com, 28.09.2010)*




Ev bulten, bi alîkariya Vlaamse Gemeenschapscommissie (VGC), bi kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî hatiye weşandin.